

## Peyama sekreterê giştî ê PDKÎ, Mistefa Hicrî bo xelkê Rojhilata Kurdistanê

»»»» R:5



*Bidestveanîna mafên netewî yên gelê kurd di çarçoveya Îraneke demokratîk û federal de*

# Agirî

Duheftînameyek Siayasî-Giştî Ye, PDK Îranê diweşîne www.kurdistanmedia.com/kurdî
www.agirimedia.org Hejmar (280) 20-06-2016 Buha (500) Tûmen

## Teşkîlata PDKÎ li derveyî welat alîkariya malî kom dike



**Teşkîlata PDKÎ li derveyî welat, bo piştevanîkirina ji PDKÎ dest bi komkirina alîkariya malî kiriye.**

Teşkîlata derveyî welat, bo piştevanîkirina ji xebata nû ya PDKÎ, dest bi komkirina alîkariyên malî kiriye, û di vê derheqê de, jimare hisabên bankî belav kirine, û di çend rojên pêşiya me de jî, bo komkirina yarmetiyê, wê agehdariyekê belav bike.

Hejmare hesaba piştgiriya ji "Rasan" (rabûn)ê

PDKI
DNB BANK
IBAN:NO2215032247463
BIC/SWIFT:DNBANOKKXXX
NORWAY

Bo zanyariyên zêdetir hûn dikarin têkiliyê bi vê E-mailê re bikin:

donate@pdki.org

## Pêşmerge tenê dijminekî nas dike ew jî Komara Îslamî a Îranê ye










**Şehîdên Şinoyê bûne nîşanderê rêya şoreşeke nû li Kurdistanê**

Roja Yekşemî berwarê 19'ê Hezîrana 2016'an a Zayînî (30.03.1395'an a Rojî) li Nawenda Sê ya Kurdistanê, rêûresma rêzgirtin ji şehîdên xebata nû ya Hizba Demokrat hate lidarxistin. Rêûresm bi amadebûna Sekreterê Giştî yê Hizba Demokrat, heyeta partiyên siyasî ên hemû beşên Kurdistanê, endamên rêberiya Hizbê, kadr û pêşmerge, endamên Hizbê û malbatên wan, bi sirûda netewî ya "Ey Reqîb" û ragirtina deqeyek bêdengiyê bona rêzgirtin ji yad û bîra şehîdan, dest bi karê xwe kir.

Di vê rêûresmê de sekreterê giştî yê PDKÎ çend gotinek pêşkêş kirin, û tê de ragehand ku, "Rast e ku jidestdana wan şehîdan karesateke tal û bijan e, lê rêberiya Hizba Demokrat bi bizanebûn ji zulm û stema rejîmê, û haydarî ji têçûya (nirxa) xebatê, ev rêya nû ya xebatê hilbijartiye, û hewla bihevre girêdana xebata çiya û bajar dide".

Sekreterê giştî yê Hizba Demokrat serbarê derbirîna hevxemiya xwe tevî netewa Kurd û endamên Hizba Demokrat û malbatên şehîdan, mizgîniya vê da xelkê Kurdistanê ku, PDKÎ wê weke berê pêşengê xebata Kurd di pêxema bidestxistina jiyaneke bi serbilindî be.

Sekreterê Giştî yê PDKÎ, serbarê peyman nûkirin digel armanaca şehîdan û pêdagiriya li ser wan sozên ku Hizba Demokrat daye gelê Kurd, hişdarî dan Komara Îslamî ku, bi Kuştar, tepeserkirin û wêrankirina malên xelkê, nikare gelê Kurd û xortên şoreşvan ên Kurd, ji xwastekên xwe paşgez bike.

Hewceyî basê ye ku roja Çarşemî berwarê 15'ê Hezîranê (26.03.1394) desteyek ji pêşmergeyên Hizba Demokrat ku bo birêvebirina erkên xwe yên hizbî li derdora bajarê Şinoyê bûn, li gundê "Qere Seqel" ê dikevin boseya hêzên ser bi rejîmê de, û piştî şerekî qehremanane û weşandina derbên giran û dijwar li hêzên rejîmê, mixabin 6 pêşmergeyên PDKÎ bi navên Kemal Xizrî, Mihemedxalid Pêyxamî, Luqman Şêxanî, Cemal Îsma'îlî, Selah Nadirî, Seyîd Omer Husêynî pêşmergeyê berê yê Hizba Demokrat, ku akinciyê welatê Swîdê bû, û bi merema serîlêdana xizm û kes û karên xwe tevî tîma pêşmergên PDKÎ ber bi bajarê Şinoyê çûbû, şehîd ketin, û tevlî karwanê nemiran bûn, û bi xwîna xwe careke din dara azadiyê av dan.



## Sergotar

# Destanrês

**Kerîm Perwîzî**

Bona vê ku mirov di nav dilê toz û bayê şerê jiyan û vejînê, û man û nemanê de, cihekî taybetî ji xwe û baweriyên xwe, û pênaseya xwe re bibîne, renge hewce be ku di kiryar û rollîstinê de, li pey rê û rêbazeke nû, û bîrjênekirî de bigere, da ku lehiya bûyeran, nekare wê li ser riya xwe rake, û bikare mohra xwe li ser karnameya jiyanê bide.

Di nav civakê de, û di hemberî pergala stemkar û zalim de, mirov bona vê ku "berxwedan" di kar û kiryarên wan de reng vede, û bona vê ku bikarin, qedera pêvajoya jiyana xwe bi dest ve bigrin, dibe riya domandina jiyanê bigrin pêşiya xwe.

Ew şêwe zindîbûn, tenê zindîbûnek e wekî jîndareke xwezayî, ku çawa nan û avê dixwe û vedixwe, û çawa nivşan çê dike, wisa jî jiyana mirovekî ku teslîmî "rewşa heyî" dibe, ji vê astê derbaz nabe, û tiştek bi navê îrade û hezkirin û afirandin, tu cihek di pênaseya hebûna wî de nîne. Renge wisa hizir bê kirin, ku jiber ku riya pêşberî wan riyekî gellek dijwar e, û astengî ew qas mezin in, ku mirov bi tenê tu tişt ji destên wan nahê, bi neçarî dibe serî di hemberî rewşa heyî de bitewîne.

Lê rast di wan dema de, ku tovê bêhêvîtiyê tê çandin, û rewşa kedîkirinê (bêdengkirinê) tê zalkirin, kesên wisa derdikevin, ku bi destên betal, yan bi emrazekî herî kêm, ku renge bo hemû kesî dest bide, berdibin canê bahozên herî dijwar, û hêzên herî stemkar, û bi emrazên herî kêm, lê bi vîneke herî bilind ya mirovbûn, û afirandinê, "neketin" (kolnedan) û "ne" gotinê, dikin bi rêbaz, û heykelê rizî ê hêza zulm û stemê têk dişkînin.
Eva ew in, ku deshilata tarîperestan, û stûnên sist ên deshilata bêdadiyê, di kokê de dihejînin, lewra dema ku navên wan tê, ser û binê sîstemê dilerizînin.

Ew mirovên ku bi êş û azara herî kêm, lê bi vîn û îradeyeke pirr û bi moraleke bilind, bi bilindahiya Zagrosê, bûyerekê diafirînin, ku nivş bi nivş tê gêran (baskirin) û bi hezaran keç û kurên welat pê têne perwerdekirin, û ew dibin têhniyê baskirina mêrxasiya wan, û ew jî her ew mirovên asayî ên di himbêza gel de ne, ku baweriya wan ya bi îradeya şoreşgerî, wan zêdetir pal dide, bo têkbirina hêzên dijîmirovî, û bi kar û kiryarên pirr ji moral ên xwe, destanan diafirîn in (destanan dirêsin).

## Çexmaxeya "rasan" (rabûn) a PDKÎ li bajarê şinoyê hate lêxistin

**Hêzeke pêşmergeyên PDKÎ li bajarê Şinoyê, di Kurdistana Rojhilat de, hêzên rejîma Îslamiya Îranê têk şikandin.**

Berdevkê Şêvra Leşkerî a PDKÎ di vê derheqê de ragehand, ku tîmeke pêşmergeyên PDKÎ li bajarê şinoyê, ku di navbera gundên "Sergîz" û "Qereseqel"ê di nav xelkê xwe de bûn, û karûbarên hizbî bi rê ve dibirin, ketin boseya (kemîna) hêzên rejîma Îslamiya Îranê, û di encam de, şer û pevçûn di navbera pêşmerge û hêzên rejîmê de rû daye.

Li gora vê raporê, rejîmê gellek kuştî dane, û bi ambolansan kuştî û birîndaran bo nexweşxaneya bajarê Şinoyê vediguhêze, û çûn û hatin bo nexweşxanê qedexe ye.




## Êrîşa hêzên Spaha Pasdaran ya rejîma Îranê li ser pêşmergeyên PDKÎ hate têkbirin

**Di encama êrîşa hêzên hêzên Spaha Pasdaran ya rejîma Îranê li ser pêşmergeyên PDKÎ hejmareke zaf ji pasdarên rejîmê hatin kuştin û birîndarkirin.**



Li gora wan nûçeyên ku gihîştin malpera Kurdistanmedia, piştî vê ku roja 15'ê Hezîranê, (26'ê Cozerdana 1395)'an, tîmeke pêşmergeyên PDKÎ di dema geriyan û birêvebirina karûbarên hizbî di nava xelkê de, ketin boseya hêzên rejîma Îranê de, û di encam de şerekî giran rû da.

Rejîma Îranê piştre dest bi topbarana herêmê kir, û gellek zirar gihandin hevwelatiyan. Heya niha li gora dawî zanyariyan 11 pasdarên rejîmê haine kuştin û birîndarkirin, û sê caş jî di encama vî şerî de, hatine kuştin û birîndarkirin, û caş û kirêgirtiyên rejîmê di vê herêmê de, di amadebaşiyê de ne.

Di vî şerî de, pasdarek hatiye kuştin ku pileya serhengî hebûye, û çar caş bi navên "Yusif Ehmedî, Mistefa Xalidî, Ubeyd Herkî, û Eskender Mamel", xelkê "Balagîr"ê bûn.

Herwisa cihgirê fermandê Spaha Pasdaran a rejîmê li Şinoyê sergurdê pasdar, "Hac Semed Bostanî" bi destê hêzên pêşmerge hate kuştin.
Nûçegihanê malpera Kurdistanmedia ragehand ku piştî şerekî giran pêşmerge bi sax û silametî derbaz bûne, lê hêên rejîmê çûne nav gundên "Qereseqel, Sergîz, û Hesen Nûran"ê, û hikûmet nizamî ragehandine, û li gundê Qereseqel mala "Kerîma Ecem" dane ber "RPG"yan, û du kurên navbirî jî girtine. Li gora zanyariyan, kirêgirtiyê bi navê "Serdar Ehmedî" fermandariya vî şerî li dijî pêşmergeyan dike.

# Deftera Siyasî ya PDKÎ derheq şerê li Şinoyê daxuyaniyek belav kir

**Derheq êrîşa hêzên rejîma Îranê, li dijî pêşmergeyên PDKÎ li navçeya Şinoyê daxuyaniyeke nivîskî weşand.**

**Deqa daxuyaniyê:**

Em bi agehdariya civatên xelkê Kurdistanê, û dilsojên neteweya Kurd radigehînin, ku di çarçoveya peyama newrozî û van bernameyên armancdar ên PDKÎ, ji bo berhevbûna kadr û pêşmergeyan, di nava xelkê Kurdistanê, tîmek ji pêşmergeyên PDKÎ ku bi armanca encamdana erkên rêkxistinî û teblîxatî, li navçeya Şinoyê, û di gundê Qereseqelê de bûn, di dema nîvro ya roja Çarşemiyê 26'ê Cozerdanê (15'ê Hezîranê) ketin ber dorpêç, û êrîşa hêzeke zaf, û teyar bi hemû çekeke rejîmê. Pêşmergeyên PDKÎ di hemberî vê êrîş û hêza zaf ya rejîmê de dest bi berevanîkirina ji xwe kirin, û di şerekî qehremanane de, ku hêjayî pêşmergeyên Demokrat e, karîn hejmareke zaf û berçav ji fermandar û pasdarên payebilind ên rejîmê û kirêgirtiyên wan bikujin, û derbên giran li wan bidin, ku ji hemiyan zêdetir, rejîm bixwe, ji hejmara zaf ya kuştî û birîndarên xwe agehdar e. Bi vî halî jî dezgehên piropagendeyî ên rejîmê bi çewtekariyan û bi xapandinê, hewl dan ku vê derba giran ku ji destê pêşmerge xwarin veşêrin, û bona çavtirsandina xelkê, mala hevwelatiyên gundê Qereseqelê bi awayekî gellek hovane dane ber agirê top û xompareyan û şewitandin, û kavil kirin, ku ew yek jî nîşana tirs û xofa rejîmê ji pêwendiya bihêz ya di navbera xelk û pêşmerge de ye. Bergiriya qehremanane û destanrêsiya (hemase afirandina) pêşmergeyên Demokrat, di vî şer û pevçûnê de, rûpeleke din ya zêrîn, bi şehîdbûna desteyek ji pêşmergeyên Demokrat xiste ser tênûsa (deftera) tekoşîn û cangorîtiya xortên qehreman, ên Kurd, û tevgera Kurdistanê.

Şehîdên vê berengarî û bergirîkirinê di gundê Qereseqelê de ew in:

1-Kemal Xizrî 2-Mihemed Xalid Pêyxamî 3-Luqman Şêxanî 4-Cemal Îsma'îlî 5-Selah Nadirî û Seyîd Umer Husênî, ku navbirî pêşmergê pêşin ê PDKÎ bû, û nîşteciyê Swîdê bû, ku bi armanca serlêdana xizmên xwe digel wan pêşmergeyan çûbû Şinoyê. Cuda ji vê ku, renge gumana vê hebe, ku yek ji wan kesan bi birîndarî ketibe



destên hêzên dijîgelî ên rejîmê de, ku parastina canê wî, dikeve stûyê rejîma Komara Îslamî ya Îranê de.

Silav li riha pak ya van şehîdên me yên serbilind.

Xelkê xweragir ê Kurdistanê!

PDKÎ her wê demê ku biryara cîbicîkirina bernameya xwe ya armancdar di pêxema berhevbûna kadr û pêşmergeyan di nav xelkê Kurdistana Rojhilat de derkir, bîr ji hemû aliyên vê meselê û nirxa vê çalakiyê kiribû, û dizanî ku xebata micid (ciddî) ya PDKÎ li dijî Komara Îslamî ya Îranê, nirxhilgir e, û hewcehî bi fîdakariyeke bêqas ya xortên Demokrat heye.

Lewra digel dilgiraniya ji şehîdbûna van pêşmergeyan, û vê xisara ku li tevgera Kurd û PDKÎ ketiye, em şanaziyê bi bergirî û berxwedan û destanrêsiya wan dikin, û xelkê Kurdistanê xatircem dikin, ku emê hemû hêz û şiyana xwe bi kar bînin, bona vê ku kadr û pêşmergeyên PDKÎ berdewam di nav wan de bin, û pişt û penayê wan bin.

Her li derheq bergiriya qehremanane ya pêşmergeyên PDKÎ û şehîdbûna vê desteya pêşmergeyan, di heyama van sê rojên borî de, komek ji partî û aliyên siyasî û kesayetiyan, bi derkirina daxuyaniyan, û bi peyam û pêwendiyên telefonî piştevaniya xwe, bo berfirehtirkirina xebatê eşkere kirine, û xembariya xwe bo şehîdbûna van pêşmergeyan nîşan dane.

Lewra em bi hewce dizanin, ku spasiya hemû aliyekî bikin, û rêz ji dilgiraniya van bo tevgera Kurd û hevxemiya wan digel PDKÎ bi taybetî xelkê Demokratperwer ê bajarê Şinoyê û derdorê bikin.

Malbatên serbilind ên şehîdan!

Tevî vê ku em sersaxiyê ji we re dixwazin, û hevparê xemên we ne, di heman demê de, em vê rastiyê radixin ber çavan, ku rê û şopa şehîdên me ên leheng, rêbazeke pîroz, rewa û berheq e, û ji bo azadiyê û bidestveanîna mafê neteweyeke zulmlêkirî ye, û xortên neteweya Kurd û PDKÎ û partiya têkoşerên me ên şehîd, qedrê vê xweragirî, û nirxdana we dizanin, û xelata herî baş bo van şehîdên me jî, domandina riya wan e.

Lewra em sebrê ji hemû aliyekî re dixwazin, û bidestveanîana hêviyên wan şehîdan, erk û wezîfeya li ser milên me hemiyan e.

Silav li riha pak ya van şehîdan, û hemû şehîdên riya rizgariya Kurdistanê

Berdewam be, xebata Kurd di pêxema azadî û rizgariyê de

Merg û neman bo rejîma dijî gelî û dijî azadî ya Komara Îslamî ya Îranê, û kirêgirtiyên wê

**PDKÎ**
**Deftera Siyasî**

**29.03.1395**
**18.06.2016**

# Rêûresma rêzgirtina ji şehîdên destanrêsiya Şinoyê bi rê ve çû

**Di rêûresma rêzgirtina ji yad û bîr, û tekoşîna şehîdên nû ên xebata PDKÎ de, sekreterê giştî ê PDKÎ tevî peyman nûkirina digel armancên şehîdan, û pêdagirîkirina li ser peymana hizbê digel xelkê xwe, û neteweya xwe, hişdarî da Komara Îslamî, ku bi kuştin û serkutkirin, û malwêrankirinê, nikare xelkê Kurd û xortên têkoşer ên xwe ji daxwazên wan ên rewa paşve vegerîne.**




Roja Yekşemiyê 30'ê Cozerdanê ya sala 1395'an (19'ê Hezîranê), Di Nawenda 3'ê ya Kurdistanê de, rêûresma rêzgirtina ji şehîdên nû ên xebata PDKÎ bi rê ve çû.

Vê rêûresmê, bi beşdariya sekreterê giştî ê PDKÎ û heyeta hizbê, û aliyên siyasî di hemû beşên Kurdistanê de, û endamên rêberî û kadr û pêşmerge û endamên hizbê, û malbatên wan, û malbatên şehîdên vê dawiyê ên xebata PDKÎ, û bi danîna sirûda "Ey Reqîb" û ragirtina deqeyekê bêdengî bona rêzgirtina ji riha pak ya şehîdan dest pê kir.

Di destpêka vê rêûresmê de, Sidîq Derwêşî, endamê Komîteya Nawendî û berpirsê Nawenda 3 ya Kurdistanê, piştî bixêrhatinkirina hemiyan, û bi taybetî mêhvanan, baseke kurt li ser biryara nû ya PDKÎ bona destpêkirina qonaxa nû ya xebatê, û erk û karê wan pêşmergeyan, ku li Şinoyê, rastî êrîşa hêzên rejîmê hatin, kir, û bi kurtî qala çawaniya vê bûyerê û xisarên dijmin, û qehremanetiya pêşmergên PDKÎ kir.

Piştre Mistefa Hicrî sekreterê giştî ê PDKÎ çend gotinek derheq vê bûyerê, û şehîdbûna van pêşmergeyan kir. Rêzdar Hicrî di axivtina xwe de tevî pêdagirîkirina li ser hovîtî û dijîgelîbûna Komara Îslamî, a amaje bi vê yekê jî kir ku ew zext û zor û hovîtiya rejîmê, nikare PDKÎ û neteweya Kurd û xortên xebatkar ên wê, ji xwestek û daxwaziyên wan paşve vegerîne, û Kurdistan bi zora rejîma Îslamî ya Îranê, nakeve çokan (qedeman).

Mistefa Hicrî di beşeke din ya axivtina xwe de, bas ji vê kir ku herçend bûyera jidestdayîna van pêşmergeyan tal û dilêş e, lê rêberiya PDKÎ, bi nirxandina hemû stemkariyên rejîmê, û bi nirxandina nirxên xebatê, û bi berhevdaneke hemû aliyane, biryara nûkirina xebatê daye, û pêdagir e li ser pêkvegirêdana xebata çiya û bajar, û berdewam e li ser hilbijartina riya pirr ji şanazî ya xebata nû.

Sekreterê giştî ê PDKÎ di beşeke din ya axivtinên xwe de îşare bi vê kir ku beşdariya hizb û aliyên siyasî ên hemû beşên Kurdistanê, di vê rêûresmê de nîşan dide ku herçend ku cudahiya siyasî û bîrkirinê me heye, lê em hemû ser bi yek berjewendiya bilind û yek bîrkirinê ne, ku ew jî hevbendiya me li ser parastina nîştiman e. Dijminên me ji hemû aliyekî ve, çengên xwe xistine nav xwîna me de, û em jî, hewce ye ku yekrêz bin, bona vê ku berbirûyê terorîstan û dijminan û neyarên Kurdan di hemû rûçikan de bibin.

Sekreterê giştî ê PDKÎ di dawiya axivtina xwe de, tevî nîşandana hevxemiyê digel gelê Kurd, û endamên PDKÎ û malbatên şehîdên vê dawiyê ên xebata nû, soza pêdagirî li ser peymana PDKÎ digel şehîdan û digel xelkê nû kir, û mizgînî da xelkê, ku PDKÎ wekî hertim, pêşengê xebata neteweyî bo gihîştina bi jiyana serbilindane dibe.

Di beşeke din ya vê rêûresmê de, Sidîq Derwêşî, bi kurtî jiyannameya her şeş şehîdan ji beşdaran re bas kir, û piştre îşare bi navê van hizb û aliyên siyasî kir, ku yan bi heyet di rêûresmê de beşdar bûn, yan jî peyamên sersaxî û hevxemiyê şandibû, ku weha bû:

1-Partiya Demokrat a Kurdistanê
2-Yekîtiay Nîştimanî a Kurdistanê
3-Hevalên pêşîn
4-HDP
5-ENKS
6- Partiya Şiyû'î ya Kurdistanê
7-Partiya Sosyalîst a Kurdistana Bakur
8-Partiya Welatparêz a Kurdistanê
9-Bizûtneweya Demokratî a Gelê Kurdistanê
10-Partiya Demokrat a Kurdistanê-Sûriye
11-Partiya Demokrat a Kurdistanê-Bakûr
12-Partiya Yekîtiya Demokratîk a Kurd-Sûriye
13-Partiya Zehmetkêşan a Kurdistanê
14-Partiya Rizgariya Kurdistanê
15-Partiya Lîberal a Demokratî ya Kurdistanê
16-Peyama Yekîtiyln Lawan, Jinan, û Xwendekarên Kurdistana Îranê



# Peyama sekreterê giştî yê PDKÎ ji bo civatên xelkê Kurdistanê




**Sekreterê giştî yê PDKÎ, Mistefa Hicrî derheq qonaxa nû ya xebata rewa ya PDKÎ, peyamek rû li xelkê Kurdistanê belav kir.**

**Deqa peyamê:**

Xelkê azadîxwaz û xweragir ê Rojhilata Kurdistanê!

Ciwanên xwedîhest û têhniyê azadî û rizgariyê!

Tex û qatên civaka Kurdistanê!

Xortên biceg û xebatkar ên we, pêşmergeyên PDKÎ, ji sînorên Kurdistanê ve, heya kûrahiya xaka pîroz ya Kurdistanê, di nav kûrahiya nîştimana me ya dagîrkirî ji aliyê DAÎŞ'ê Şî'e ê Komara Îslamî ve, deste deste vedigerin himbêza pirr ji dilovanî û hezkirin ya we, û himbêza dayîka nîştiman.

Ew kotrên aştiyê ne, ku peyama biratî û wekheviyê, ji bo hemû rûniştiyên Kurdistanê, hilgirtine. Ew, ew hêz û qavet in, ku hatine, da ku dest di nav destên we de, xebata çiya û bajar pêkve girê bidin, xebat ji bo mirovahiyê, û ji bo jiyana serbilindane ya serdemiyane, ku me di "peyama newrozî" ya îsal de ragehand.

Em xatircem in, ku hûnê ne tenê wan xortên leheng û can li ser dest ên xwe bi dil û can biparêzin, belkû hûnê hêza xwe ya bêhempa jî, digel hêz û qaveta wan bikin yek, û bi vê hêza xwe ya çendqat, hûnê xebata xwe ji bo rizgariya ji bindestiyê ber bi pêşve bibin, ew hêz û şiyana ku tirs û xof xistiye nav dilê rejîma Komara Îslamiya Îranê de.

Di vê rewşê de, em bi hewce dizanin ku rû bikin hemû wan kesên, ku bi her sedemekê be, çeka rejîmê hilgirtine, yan jî bi her şêweyekê be, li dijî hêza pêşmerge û xelkê xebatkar, xizmetê bi armancên pîs û gemar ên rejîmê dikin.

Peyama me bo wan kesan jî ew e ku:

Pêşmerge tenê yek dijminî nas dike, ew jî rejîma Komara Îslamî ye, ku hemû mafên vî gelî, û berî wê jî, mafê wan Kurdan binpê kiriye, ku bi çekdarkirina wan, pîlana kuştina Kurd bi dest Kurd bi rê ve dibe, û li ber çavên xelkê Kurdistanê, wan sivik û rezîl dike, rejîmek ku rewşeke wisa ji bo Kurd pêk aniye, ku hejmarek ji wan di pêxema peydakirina nanekî ji bo xwe, û jib o zarokên xwe, amade dibin destê xwe bi xwîna pêşmerge û xortên xebatkar ên hevneteweya xwe sor bikin.

Em daxwazê ji wan çekdaran û hemû wan Kurdan dikin, yên ku li dijî tevgera Kurd xizmetê bi rejîmê dikin, heya ku direng nebûye, dev ji çeka îxaneta bi gel û welat, û neteweya xwe berdin, û nifretê bikin ji vê nanê ku bi qîmeta (nirxa) rijandina xwîna xebatkarên Kurd bi dest ve tînin.

Di destpêka Payîza sala 1388 (2009)'an de jî, di vî warî de, me peyamek, da wan kesan, û me ew xatircem kirin ku hekî ew çeka îxanetê bavêjin, û dev ji îxanetê li dijî neteweya xwe berdin, wê demê pêşmerge dijayetiya we nake, û niha jî em bi wê peyama xwe emegdar in, û daxwazê ji we dikin, ku vegerin nav rîza xelkê xwe de, da ku em hemû mil bi milê hevdu roj bi rojê zêdetir rejîmê rezîl û riswa bikin.

Yan jî aliyê kêm, dest ji geriyana li pey (dû) pêşmergeyan, û çavsaxîkirina ji bo hêzên serkutkar ên rejîmê û êrîşkirina li ser pêşmerge berdin, û hekî wisa nekin, xatircem bin, hêza pêşmerge û xelkê têkoşer û şoreşger ê Kurdistanê, we nabexşin (naborin), û direng yan zû, hûnê berpirsyar bin di hemberî domandina van kiryarên xwe yên nemirovî.

Bi hêviya yekrêzî û tebahiyê di nav gelê Kurd de, li dijî Komara Îslamî

**Sekreterê Giştî**
**Mistefa Hicrî**

**29.03.1395**
**18.06.2016**

> **Pêşmerge tenê yek dijminî nas dike, ew jî rejîma Komara Îslamî ye, ku hemû mafên vî gelî, û berî wê jî, mafê wan Kurdan binpê kiriye, ku bi çekdarkirina wan, pîlana kuştina Kurd bi dest Kurd bi rê ve dibe,**

## Malbata Simkoyê Şikak peyamana şoreşvaniyê tevî Hizba Demokrata Kurdistanê nû kir



**Malbata Simkoyê Şikak di peyamekî de, şehîdketina hejmarek ji pêşmergên Hizba Demokrat bi destê hêzên rejîma Komara Îslamî bi xisar û keserek mezin dane zanîn û sersaxiya ji malbata wan şehîdan re xwastin.**

**Eva deqa peyamê ye:**

Digel silav û hurmetan bo ruha şehîdên rêya azadiyê ên Hizba Demokrata Kurdistana Îranê

Bihîstina nûçeya şehîdketina çend pêşmergên qehreman ên rêya azadiya Kurdistanê, di şerekî ne wekhev û necamêrî de li derdora bajarê Şinoyê, dilê hemû xelkê Kurdistanê giran û birîndar kir, lewra em sersaxiyê dibêjin malbata wan şehîdan û Hizba Demokrata Kurdistana Îranê.

Em wek xwe û bi pişka xwe, di vê roja pir ji dilgiranî de, û herweha di pêşerojê de jî, wê mil bi milê xûşk û birayên xwe û malbatên rêzdar ên şehîdan disekinîn.

Bi hêviya serkewtina edalet, azadî, wekhevî, biratî û berbirûbûna dijminên demokrasî û Kurd û Kurdistanê, û bi hebûna berdewam ya xwe, û bi hebûna wan qehremanan, bibin çiqlê çavê dujminan û rejîma faşîst ya Îslamî ya Îranê.

Ew xortên egîd û ezîz, bi bicîhgehandina erkên siyasî – leşkirî ya xwe, waneya exlaqê bilind ya civakî, dan hemo xort û xûşk û birayên me li Kurdistanê.

Silav li pêşmergên qehreman ên rêya azadiyê

Sebûrî bo malbata wan ezîzan û herweha bo PDKÎ

## Şaneyên nepenî ên Teşkîlata Hizba Demokrat peyama hevxemiyê ji hizbê re şandin

**Endamên teşkîlata nepenî a Hizba Demokrata Kurdistana Îranê li bajarên Bokan û Rebet û Nelasê, derheq bi şehîdketina polek ji pêşmergên Hizba Demokrata Kurdistana Îranê bi destê rejîma dijî gelî ya Komara Îslamî ya Îranê, peyama sersaxî û hevxemiyê ji Hizba Demokrat re şandin.**

Malpera Kurdistanmedyayê belav kir ku roja Înê 17 Hezîranê endamên teşkîlata nepenî ên Hizba Demokrat li Rebetê di peyamekî de serbarê derbirîna sersaxî û hevxemiya xwe bona şehîdketina hejmarek ji pêşmergên Hizba Demokrat bi destên hêzên ser bi rejîma Komara Îslamî ya Îranê li Şinoyê, ragehandin ku, “Em weke teşkîlata Rebetê sersaxiyê dibêjin hemû xelkê Kurdistanê û malbata serbilind yê wan şehîdan û hizba xwe ya xweştevî dikin û peymana xwe tevî rêbaza wan nû dikin û sozê didin ku, heya dilopa dawiyê ya xwîna xwe, wê dirêjederê rêbaza wan bin”.

Her di vê derheqê de teşkîlata herêma Aleşîn ya ser bi Bokanê jî, di peyamekî de bo endamên rêberî, kadr, pêşmerge, endam û alîgirên Hizba Demokrata Kurdistana Îranê, hevxemiya xwe nîşan dan û ragehandin ku, “Em sersaxiyê dibêjin we hemûyan, û sozê didin we hemûyan ku, bi domandina rêya wan şehîdan emê berevaniyê ji maf û azadiyên xelkê Kurdistanê bikin û sozê didin ku heya dilopa dawiyê ya xwîna xwe, weke şehîdên berê û niha, wê dirêjîderê riya wan bin.

Teşkîlata Nelasê jî bi boneya şehîdkirina polek ji pêşmergên Hizba Demokrat bi destê Komara dije gelî ya Îranê, payama hevxemiyê şandin û têde ragehandin ku, “Em weke teşkîlata nepenî ya Nelasê, bi bihîstina nûçeya şehîdketina polek ji pêşmergên Hizba Demokrata Kurdistana Îranê li derdora bajarê Şinoyê, pir dilgiran bûn û bi vê boneyê ve, pirse û sersaxiyê dibêjin xelkê Kurdistanê, hizba xwe ya xweştevî û mala-



bata wan şehîdên serbilind, û peymana xwe jî nû dikin ku, heya dilopa dawiyê ya xwîna xwe, wê dirêjîderê rêya şehîdan bin û wê ji berê zêdetir liser rêbaza xwe sor bin”.

## Rajîma Îranê zozanên Serdeştê topbaran dike

**Rejîma Komara Îslamî ya Îranê ji tirsa hêza pêşmerge ya Hizba Demokrata Kurdistana Îranê, zozanên bajarê Serdeştê bi tundî bombebaran dike.**

Malpera Kurdistanmedia yê ragehand ku, hêza topxaneya giran ya rejîma Îslamî li gewriya “Zimzîranê” herêmên Bokan, Mihabad û zozanên Serdeştê topbaran dike.

Hate ragehandin ku zozanên Piştî genman, Sêwe Sûrê, Şaxe Reş, Genman, Çiyayî Keprê, bilindahiyên Sêsîr û Meydan Çoxe, belmala Nîsanê û herweha zozanên Birahîm Lacanê bi tundî ji aliyê topxaneya giran ya rejîma Îslamî ya tehranê hatine topbarankirin.

Nûçegihanê Kurdistanmedia yê li herêmê ragehand ku, liv û tevgerên hêzên çekdar ên ser bi rejîmê li herêmên Serdeşt û Bokan û Mihanadê gellek zêde bûye û herweha hêzeke berfireh ya rejîmê ji Mihabad û Bokanê ve ber bi bilindahiyên çiyayên Serdeştê ve hatine şandin.

Hêjayî basê ye ku liv û tevger û veguhaztina hêzên rejîma Îslamî



ya Tehranê ji Mihabad û Bokanê û herweha topbarankirina wan deveran, encama tirs û dilkutoka rejîma terorîst ya Îslamî ya Îranê ye ji hebûn û vegeriyana hêza pêşmergên Hizba Demokrata Kurdistana îranê.

Eva piştî vê tê ku berwarê 18’ê Hezîranê, polek din a pêşmergên Hizba Demokrat ku li derdora gundê Nistan a ser bi bajarê Serdeştê mijûlî encamdana erkê xwe yê hizbî bûn, ketin bosey zerbeta ser bi rejîm, û di encam de di navbera wan de şer û pevçûn derketin holê, û piştî şerekî giran, hêzên rejîmê şikiyan û neçar bi paşekişê hatin kirin, û hêza pêşmerge jî bê tu zirarek ev der bi cih hêlan.

# Deftera Siyasî ya PDKÎ daxuyaniyeke nivîskî weşand

**Deftera Siyasî ya PDKÎ li ser berevajînîşandana diruşm û xebata PDKÎ ji aliyê hinek aliyan ve, daxuyaniyeke nivîskî ji raya giştî re belav kir.**

**Deqa daxuyaniyê:**

Hevwelatiyên rêzdar!

Xelkê xweragir û xebatkar ê Kurdistanê!

Têkoşerên riya azadî û rê û şopa rêberên şehîd!

Komara Îslamiya Îranê, her di destpêkê de, ku hate ser kar, digel dengê mafxwazane yê Kurd û daxwaziyên rewa ên xelkê Kurdistanê, bîhanî û neyar bûye, û têgehên mafên mirovan, demokrasî û mafê neteweyî û wekheviyan jin û mêran, di nav civakê de, li dijî baweriyên dugm û paşvemayî ên xwe zaniye, û dijberiya wan kiriye, û hewla serkuta hilgirên vê têgeha (çemka) mirovî û serdemiyane daye, û ew îşkence û heya îdam jî kirine.

Ew her bi vê yekê jî razî nebûne, û li dijî wan bîr û baweriyan, û partî û rêkxirawên hilgirê van têgehên mirovî, pîlanên curbicur û rengbireng darêtine, û ji riya dezgehên ragehandinê ên xwe ve, bona bênirxnîşandana van têgehan, tekoşîn kirine, û hewl dane da ku ji bilî ragehandin û pesnkerên xwe, ji riya hinek kes û aliyan ve jî, siyaset û baweriyên li dijî azadiyê di nav xelk û civaka Kurdistanê de belav bikin, bona vê ku bazineya alîgiriya ji rejîmê berfireh nîşan bidin, û rewşeke wisa bi ser civakê de zal bikin, ku xebata xelkê Kurdistanê, û qehremantiya xortên cangorî û partî û rêkxirawên Kurdî kêmreng bikin, û xweragirî û xebata wan bêbandor bidin nasandin, û bi giştî wisa bikin, ku derbazbûyiya pirr ji şanazî ya Kurd bi awayekî din û berevajî rastiya xwe nîşan bidin. Bi awayekî ku diruşma rûxana rejîmê bi dûr ji lojîk (eql û mentiq), û herwisa xebat û xweragirî û birêvebirina şêweyên xebata Kurd ji aliyê hinek aliyan ve jî, bi dasepandî bi ser Kurd de bihesibînin, û heykelê rejîmê ew qas bilind û bihêz nîşan bidin, ku dengbilindkirin û destbilindkirina di hemberî wê de, bê encam bidin nîşandan.

Eva jî di demekê de ye, ku Kurd bi vîna xwe, û bi berhvdaneke jîrane, amade nebû di referandomekê de beşdar bibe, ku rewşê ji bo bidestvegirtina deshilatê ji aliyê Komara Îslamî ve xweş bike.

Gelo wê demê ji bilî Kurdan, tu hêz û aliyekî din, bi rast û çep û ayînî ve, helwest girt, bona retkirina Komara Îslamî ya Îranê, heya ku bê gotin, ku wan îradeya xwe bi ser Kurd de sepandine?!.

Asayî ye dema ku Kurd di bingeh de li dijî hatine serkar a rejîma Komara Îslamî be, bilinkirina dirûşma herifandina rejîmê ji aliyê vê neteweya Kurd ve, gellek xwezayî ye. Piştre dema ku hêzên Kurdî dirûşma rûxana rejîmê bi fermî û eşkere ragehandin, di vê derheqê de, çi hêz û aliyek pêşî netewa Kurd ket, heya ku gumana vê yekê çê bikin ku, gelê Kurd bi çavlêkerî ji wan hêz û aliyan, dirûşma rûxana rejîmê hilgirtiye?

Bas ji bêbandoriya xebata micid û curên berbirûbûna tevî rejîmê tê kirin û hewla vê yekê tê dayîn ku, serîtewandin û xwe çemandin li hemberî rejîmê, cihê wê bigire, û tê gotin ku, wê bêtir û bibandortir be, li vir ev pirsyar derdikeve holê, gelo Kerûbî, Mûsewî, Xatemî, Montezrî, Benî Sedr û ...hwd, xebata tundûtûj li dijî rejîmê encam dabûn, ku digel vê qederê berbirû bûn? Bas ji danûstandinên tevî rejîmê tê kirin û tovê vê yekê tê belavkirin ku, di sîstema Komara Îslamî de derfeta diyalog û bidestxistina beşek ji mafên gelê Kurd û azadîxwazên Îranê heye!

Di vê derheqê de hewcehî bi amajê ye ku diyalog rêçareya guncav bona arîşeyên siyasî ye, xwezî li Îranê rejîmek li ser kar ba ku, kêşe û pirsgirêkên xwe, tevî xelkê Îran û Kurdistanê, ji vê rêyê ve çareser kiriba, lê Komara Îslamî ya Îranê, ku daxwazên demokratîk û mafên netewî ên gelê Kurd digel kakil û naveroka wê nateba ye, hekî bêje ezê danûstandinê bikim, li ser kîjan mijarê danûstandinê dike, ku bixwe bawerî pê hebe?! Xincî vê ceribandina ku Kurd û tevgera Kurdistanê nîşan daye ku, Komara Îslamî ya Îranê ji vê têgehê (Çemkê) weke pîlanek mifah standiye, ne weke rêçare.

Bi giştî eva ku di çend heyvên derbazbûyî de, li ser asta aliyên tevgera Kurd û maf û azadiyên Kurdan ji zimanê aliyeke diyarîkirî tê bihîstin, ku tê gotin dijberî Komara Îslamî ya Îranê ye, û hewlê dide bo aliyê berjewendiyên Komara Îslamî ya Îranê û bi zirarên tevgera Kurd, û çandina tovê bêhêvîbûnê di nava xelkê Kurd de bade, tiştek e ku nabe û nahê kirin ku tu xorteke Kurd ê wefadar bi armancên netewa Kurd li Kurdistana Rojhilat, di hember de, bê helwêst û xemsar be, û eşkerekirina rûyê rastîn yê vê bi nav gotar û siyasetê, dikeve ser milê me hemûyan, jiber ku doma wan bas û mijaran ku me amaje pê kir, diçe xaneya berjewendiyên rejîmê û zirar û xisaran li xebata netewa Kurd dide, û valahiyê dixe nava refên xelk û partî û rêkxistinên siyasî ên Kurdistanî de.

Di heman demê de, em hêvîdar in ku, kesên ku hilgirê vê nêrîn û bîrokeyê ne, û ji bo vê pîlanê hêcetan (pasawan) tînin, û vê bîrokê geş dikin, li rûyê nezanebûn, û lêkvedana nerast ve, ketibin nava vê telikê de, û careke din pêdeçûnê bi xwe de bikin, û rêya xwe ji rêbaza xebat û berjewendiyên Kurd, ji vê ku heye, zêdetir dûr nexin, û “La” nedin.

Biserkeve xebata rewa ya gelê Kurd, di pêxema bidestxistina maf û azadiyên xwe de

Qahîmtir be, îradeya xortên netewa Kurd li Kurdistana Rojhilat bona domandina xebat û berxwedanê

Biherife rejîma dijî Kurd û dijî azadî ya Komara Îslamî ya Îranê

**PDKÎ**
**Deftera Siyasî**

**14’ê Hezîrana 2016’an a Zayînî**
**25’ê Cozerdana 1395’an a Rojî**

